
Rostem Cehangîrî

## Agirî
Serbilind E
Wek Çiyayê Agirî
Û Şoreşa Agirî

••• 4

## Agirî
Ew Kaniya Ku Ber
Bi Behrê Diherike


Mihemed Salih Qadirî

3 •••

bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd di çarçoveya îraneke demokratîk û federal de

# AGIRÎ

(www.agirimedia.org) bi nûçeyên germ li pêşberî we ye. Ji niha û pêve xwendevanên hêja ên Agirî dikarin nûçeyên curbicur ên siyasî, civakî, rengbireng û herweha hevpeyvînên curbicur û gotarên dwlemend û pirr nawerok di malper agirimedia.org de bixwînin. di vê malperê de emê giringiyê bidin nûçeyên herçar aliyên kurdistanê, û her kurdekî welatparêz wê xwe di malpera Agirî de bibîne. Alîkariya xwendevanên agirî jî di warê şandina nûçe û mijarên curbicur cihê kêfxweşiya me ye. (Desteya weşana Agirî)



Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê Diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî Hejmar (200) 18-02-2013 Buha (150) Tûmen

Ebdulah Hîcab

Agirî Kariye Dewsa Piyê Xwe Danê Ser Wêjeya Kurdî
••• 3

Selîm Zencîrî

Şanazî Û Sermayeya Me'newî A Jiyana Min
••• 4

kawûs Ezîzî

Agirî Gilêlka Çavên Me Ye
••• 5

Azad Kurdî

Agirî Ji Hejmara 1 Heta 200
••• 6

Nahîd Husênî

Agirî Rêz Ji Mafê Xwendevanên Xwe Girtiye
••• 6

# Agirî bi 200'emîn tîrêja xwe zivistana 2013'ê ronahî kir




Eva Agirî neh sal û du meh ji kar û xebata xwe ya bê sekinandin pişt serê xwe ve avêt, û pê danî di nav sala xwe ya dehemîn de. Di van çend salan de, 200 hejmar jê hatin çapkirin. Agirî ku yekem hejmara wê di 1'ê Novembera 2003'an de hate çapkirin, û wê demê her mehê carekê dihate weşandin, lê ji hejmara 24'an şûnda her 15 rojan carekê bi nawerokek dewlemend kete ber destê xwendevanên xwe, û êdî rojbiroj bi peyvên zêrîn şewq û çirûsk da rojnamegeriya Kurdî, û sînorên destçêkirî derbas kirin.

Ya giring ew bû ku ew qas hejmarên Agirî di demekê de derketin ku birêveber û endamên wê bi bîr û baweriyek kûr, û bi hêviyek bê mînak ve, biryar dabûn ku di riya xizmeta bi çand û wêjeya Kurdî de bimeşin, û bi vî awayî erkê xwe yê neteweyî di warê xizmeta bi çand û kultura neteweya xwe de bidomîn, lewra li jêr sîbera ked û tekoşîna wan ya bi salan, Agirî bi xweşî ve gihîşte rojek wek îro. Lewra 200'emîn hejmar ji tewaya endamên Agirî, ji tewaya xwendevanên hêja ên Agirî, ji tewaya wan kesên ku di heyamê wan çend salan de di Agirî de kar û xebat kirine, hezar carî pîroz û bimbarek be.

Herwiha em destxweşî ji wan hemû hevalan dikin ku di pêvajoya rêvebirina Agirî de û gihandina wê bo 200-mîn hejmar, alîkarî dane me.

Desteya Weşana Agirî
18-2-2013

# 200 Tîrêj

Şehab Xalidî

Eva Agirî 200 hejmar pişt serê xwe ve hêlan, 200 hejmarên pirr nawerok bi zimanekî pak û rewan, û li ser bingeha xizmeta bi çand û zimanê Kurdî û di hemen dem de, dana zanyariyê rast û durust di warê pirsên herî giring ên siyasî, civakî, çandî û ...hewd, ew jî di qonaxek herî dijwar ya xebata siyasî de, ku ne îmkanatên hewce ku bo rojnameyekê hewce ne hene, ne jî pirsonêlên hewce di warê hejmara pirsonêlan, û di warê kesên akademîk de hene.

Lewra ew yek cihê şanaziyê ye bo tewaya wan kesên ku berdewam û bi bê nasîna demê, bi ew qasê xwemandîkirin û xwevestandinê kar dikin bona vê ku duheftînameya Agirî bi awayek pirr dewlemend û pirr nawerok û di hemed dem de bê kêmûkasî bigîje destê xwendevanan, û bikare kuncekê di nav rojnamegeriya Kurdî de tije bike, û zanyariyên hewce bide takên Kurd. Bê guman niha pêde jî Agirî wê li ser rê û şopa xwe ya pêştir ku xizmeta bi çand û ziman, û herweha dana zanyariyên durust bi takên civaka Kurdî ye, wê berdewam be, û wê hewil bide rojbiroj xwe nû û nûtir bike, û ne tenê ji karwanê rojnamegeriya Kurdî paşve nemîne, belkû bixwe bibe pêşengê karwanê rojnamegeriya Kurdî di her warekî de.

Herweha Agirî bi hêviyek mezin û bi armanc û sitratejiyek netewî wê berdewam be û wê bijî, heya roja azadiya yekcarî ya Kurdistanê, û wê demê bê guman li ser destê xortên fîdakar ên Kurd, wê bibe rojnameyek rojane û wê xizmetên pirr buhagiran di her warekî de bi gelê xwe bike.

Em xatircem in ku Agirî rojekê vê bibe çavkaniyek pirr dewlemend, û cihê bawerê di warê lêkolînên lêkoleran, li ser kar û xebata PDKÎ, yan jî li ser mijarên siyasî ên pêwendîdar bi Îran û herêmê. Bi hêviya azadiya Kurdistanê û birêvebirina Agirî di demeke ne hinde dûr, di nav dilê rojhilatê Kurdistanê de.








## Heyeteke Pdkî Di Civîna Şêvra Înternasyonala Sosyalîst De Beşdarî Kir

Heyeteke PDKÎ bi serperestiya Loqman Ehmedî endamê komîteya navendî li civîna şêvra Sosyalîst Înternasyonalê de beşdarî kir

Roja 16'ê Rêbendanê berpirsê Pêwendiyên Derve yê PDKÎ li welatê Portoxalê de beşdarî di civîna Şêvra Sosyalîst Înternasyonalê de kir.

Civîna roja yekşemiyê ya Şêvra Înternasyonala Sosyalîst taybet bû bi nirxandina pirsa aborî a cîhanê û pirsa ewlehî û demokrasî û herwusa rewşa siyasî û ewlehiya welatê Malî.

Her di vê pêwendiyê de heyeta PDKÎ tevî çend partên din yên her çar parên kurdistanê di civîneke taybet de, pirsa çalakkirina girûpên kurdan û hevahengî û hevkariya wan di nava Sosyalîst Înternasyonalê de xistin berbehsê.

Heyeta PDKÎ di yekem roja şêvra han de çendîn seredan tevî çend partên beşdarê şêvra han encam dan. Di wan seredanan de heyeta PDKÎ dîtingeh û siyasetên PDKÎ ji bo pêkanîna Îraneke demokratîk, sekolar û Federal anîne berbasê. Herwusa rewşa nebaş a mafê mirov di Îranê û kurdistanê û rola Komara îslamî di warê pêkanîna aloziyan li Rojhelata Navîn de anîne berbasê.

Di vê seredanê de heyeta PDKÎ pêdagirî li ser piştevanî kirina tevgera demokratîk ya neteweyên zulmlêkirî ên Îranê û rolê kongirî ya netewên Îrana federal weke yek ji altêrnatîvên demokratîk ên herî bihêz ên rejîma Îranê, giring nirxand.



## Fermndeyeke Serdemê Komara Kurdistanê Koça Dawiyê Kir



Fermndeyeke serdemê Komara Kurdistanê li herêma Urmiyê bi nexweşiyê koça dawiyê kir.

Fermndeyeke serdemê Komara Kurdistanê bi navê "Husên Îsmaîlzade" xelkê gundê "Mernê"a ser bi herêma "Soma û Biradost"ê seba nexweşiyê li yek ji nexweşxanên bajarê Urmiyê de çu ber dilovaniya xwedê.

Mam Husên serbarî kêmbûna temê wî, seba jêhatîbûna xwe weke yek ji Fermanderên hêza pêşmerge a serdemê Komara Kurdistanê hatibû hilbijartin, û paş herifîna Komara Kurdistanê li xebat û tekoşîna xwe berdewam bû û li rêza Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê de ma, û paşan jî li şoreşa salên 1968-1969'an de beşdarî kir.

PDK Îranê serxweşiya xwe arasteyî malbat û kes û karên "Mam Husên Îsmaîlzade" û xelkê deverê dike û xwe di xem û kesera wan de şirîk dizane.


Mihemed Salih Qadirî

# Agirî Ew Kaniya Ku Ber Bi Behrê Diherike

Bi sedema wan siyasetên dagîrkerî û mehandinê ku neyarên Kurdan di her parçeyek ji Kurdistanê da derheq gelê Kurd rêve dibin, di warê rênûs û rêzimana nivîskî de cudahî û ji hev dûrketinek di edebiyat û çapemeniya her yek ji parçên Kurdistanê de çê bûye. Ev yeka di demekê da ku hewcehiya ji hevfêmkirina rewşenbîr û xebatkarên her yek ji parçên Kurdistanê ji hemû demekê pêdivîtir e, bûye pirsa rojê. Ji bo bersivdan bi vê pirsgirikê û bi merema zêdetir giringîdana bi haydarkirina rewşenbîr û xebatkarên Kurmancî axiv ji rewşa tevgera Kurd li Kurdistana Îranê û eşkerekirina pîlanên rejîma Îranê, hewcehî bi çêkirina pirek mediyayî hebû.

Li ser bingeha van hewcehiyan, weşandina rojnameyek bi zaraveya Kurmanciya jorîn û bi tîpên Latînî dikarî ew valahiya mediyayî tejî bike. Lewra ji bo piraktîzekirina karek han ku ji bo min weke xewn û hisretek dehan salî bû, herwiha ji bo ku rezamendiya PDK Îranê bo afiriandina ev karê pîroz bê wergiritin, me bi nivîsek fermî daxwaza rezamendî û alîkariyê bo weşandina rojnameyekê kir.

Çend rojan piştî şandina nameya daxwazkariyê di roja 15.07.1382'an (Octobera 2003'an) ez û kekê Rostem Cehangîrî bo bîroya siyasî ya PDK Îranê hatin gazîkirin û piştî ku hinek pirsiyar derheq vê pirojê û naveroka wê ji me hat kirin û me jî bi tevahî pirs ji wan re zelal kir, bi xweşî ve ji aliyê bîroya siyasî ya PDK Îranê ve bi fermî biryara derkirina vê belavokê hat dayîn ku rojnameyek bo vê armancê were weşandin.

Ji bo navê Rojnamê jî me du nav pîşniyar kirin ku ew jî Agirî û Sîtavk bûn. Li dawiyê de navê Agirî hat pejirandin û berpirsyatiya wê kete stûyê min da ku em her mehê hejmarek çap û belav bikin.

Piştî biryara han gellek rewşenbîr û hevalên xebatkar yên me li seranserê cîhanê pêşwazî ji vê biryarê kirin û dilxweşiyek balkêş kete nav pêşmergên Bakûrê Rojhilatê Kurditana Îranê, û amadebûna xwe bo alîkariya rojnamê diyar kirin.

Di rastî de weşandina yekemîn rojnameya Agirî ji bo me weke jidayîbûna bi êş û jan a zarokek sava bû. Jiber ku di nav me xebatkarên Agirî de kesek wusa ku şarezayê karê rojnamevaniyê be, ew jî bi rênûsa Latînî, tunebû. Serbarê vê yekê jî îmkanatên fennî bo vî karî pir kêm bûn. Lê ji ber hest bi berpirsayetiya exlaqî û netewî me şev û roj bi ked û emegdarî û hebûna gellek pirsgirikan, me karî yekemîn hejmara Agirî bi ser gotara (li çiyayê Agirî ve heta Rojnameya Agirî) çap û belav bikin.

Hewce ye ji bîr nekin ku logoya Agirî ji aliyê hevalê xebatkar Mecîd Heqî ve hat çêkirin.

Piştî derçûna yekemîn hejmarê gel pêşwaziyek mezin ji gavek han kirin û bi dehan pîrozbahê ji aliyê heval, navendên ragihandinî û rewşenbîrî ji me re hatin şandin û em pir pê dilgerim bûn.

Di hejmara duhem de bi sergtara (Çima Agirî?) me karî gellek arîşe û lemperên heyî ji holê rakin û weke zarokek sava hêdî hêdî pê bigirîn.

Bi vî awayî û serbarê ku min di komîsyona Siyasî-Nîzamî de bi awayek fermî kar dikir, min karî heta derçûna jimara 13'an bi xebatkarên din yên Agirî re bim û bi wan re Rojnameya Agirî biweşînin.

Piştî kongireya 13'an û bi sedema karê nû ku li navenda 3 ya PDK Îranê kete ser milê min, hewce bû hevalek din bibe berpirsê Agirî, lewra kekê Aazd Kurdî bo vê berpirsayetiyê hat diyarîkirin.

Hewce ye vê rastiyê jî bibêjin ku di heyamê weşadina wan 13 hejmaran de îdî Agirî ji bo min weke zanîngehek lê hatibû û gellek dersxwan têde hatin perwerdekirin.

Herwiha berdewamiya weşandina Agirî bi mandî bûn û zehmeta hemû nivîskar û xebatkarên wê, karî wergir û xwendevanên xwe peyda bike û bibe rojnameyek naskirî û dewlemendiyekê bide rojnamevaniya Kurdî.

Li dawiyê de bi hewce dizanim derçûna 200'mîn hejmara Agirî ji xebatkar, nivîskar û xwendevanên Agirî pîroz bikim û serkevtina zêdetir ji wan re dixwazim.

## Dekomentên Têkilîdar Bi Dema Avakirina Agirî



Birayê hêja kekê Mihemed Salih Qadirî
Tevî silavan!
Nameya we derheq belavoka Agirî gihîşte destê me,tevî vê ku em kêfxweş in bi vê ku ew kovar di gel pêşwaziya xwendevanan berbirû bûye, lê her çawan be eva jî yek ji wan bilavokan e ku Komîsyona weşanaê a PDKÎ bilav dike, lewra hewce ye ku hûn wan pirsan bi berpirsê Komîsyana Întişaratê bas bikin,û daxwazên xwe ji riya wan ve bo Deftera Siyasî bişînin.
Birê we Elî Mêhrperwer
07.11.1382
(Çileya Paşîn ya 2003'an)



Belavoka Kirmancî
15.07.1382 (0ctobera 2003)
Nav : Agirî (nawerok siyasî û çandî)
Dem : mehê carekê
Rûpel: 20 rûpelên A4
Cur : rojname
Pît : Latîn
Cihê çapê: welateke Ewropayî bi hemşêvriya bi derve re
Berpirsê siyasî : berpirsê çapemenî
Berpirsê beşa amadekirin kekê Mihemed-salih Qadirî
Daxuyanî, nûçe û gotarên rêûresmên PDKÎ, berî çapkirina rojnamê divêt li ser malperê bêne danîn. Ên ku alîkariyê bikin, sipasiya wan tê kirin, lê bi bê biryara berpirsê siyasî çi mijarek li ser malperê nahê danîn û li rojnamê de nahê bilavkirin.
Rêkevta her hejmareke rojnameyê bi Zayînî dibe.
Yekemîn hejmar di dawiya Novembera 2003'an de derdikeve.



Birêz endamên Deftera Siyasî
Silav û Hurmet
Herwek hûn agehdar in, piştî vê biryara giring û di cihê xwe de ya we yên rêzdar, derheq weşandina rojnameya "Agirî"de, êdî ew karê me kete qonaxa bi kiryar de, û niha hejmara 3 ya Agirî li jêr çapê de ye.
Dengvedana vî karê pîroz ji aliyê beşeke berçav ya rewşenbîran, nivîskaran, zimanzanên dilsoj ên neteweya me û endamên tekoşer ên partiya me li her kunceke Kurdistan û cîhanê, wek pêngaveke nû û cihê girigîpêdanê hatiye nirxandin. Bi vê boneyê ve heya niha pitir ji sed peyamên pîrozbahiyê ji riyên curbicur ve gihîştine destê me ku naweroka tewaya wan peyaman tevî pîrozbahîkirinê, gellek xalên giring û balkêş bi xwe ve girtine ku me hewce zanî tevî wergêran û şandina deqê hinek ji wan peyaman bo we ên rêzdar, di heman dem de jî daxwazê bikin ku:
1.Bi berçavgirtina radeya kar û kêmasiyên pêwendîdar bi vî karî, hewce ye ku berî her tiştî kampiyoterek din jî bidin me.
2.Bi sedema daxwaza zêde ya xwendevanan ku heya niha zêdetir ji sed kesî di nav kempên hizbî û bi taybetî li zankoya Selahedîn û bajarê Duhokê daxwaza aboneya Agirî kirine, em daxwazê dikin ku rojnameya Agirî bi tîrajeke 200 ta 250 hebî, li wir bê bilavkirin.
Ji bo agehdariya we ên rêzdar, pêka zanyariyan bo tîrajeke weha sed dolar hewce ye.


Ebdulah Hicab

# Agirî kariye dewsa piyê xwe danê ser wêjeya Kurdî

«Agirî» piştî gelek evraz û nişîv û astengiyên li ser riya xwe, wê giha hejmara 200, û di rojnamevaniya Kurdî de şopa xwe danî. 200'emîn hejmara «Agirî» di serî de ji xebatkar, rojnamevan û hevkarên wê û li hemû xwendevanên evîndarê peyva Kurdî pîroz be.

Xuya ye eger ked, îrade û xwêdana wan hevalan neba, wê xwendevanên Kurd li Rojhilata Kurdistanê ji wê deskevta neteweyî bêpar bimana. Lê di heman demê de jî tu peyv û nivîsek nikare xweserî xwe bijî û berxwe bide, dema xwendevan û wergir tune be. Lewma keda hogir û xwendevanên «Agirî» di derbasbûna wê de ji bo qonaxa nû ya jiyana xwe pir diyar e.

«Agirî» bi jiyê xwe yê hê genc, di wan çend salên jiyanê de kariye dewsa piyê xwe danê ser wêjeya Kurdî. Ji wê jî hê bi bandortir, şêwaza nivîsandinê, mesaja ku "Agirî" belav dike û rawesta wê karîgeriya rasterast datîne ser xwegirtina nasnameya serbixwe ya neteweyî. Ji ber ku «Agirî» yekem weşana Kurdî bi zaraweya Kurmancî li Rojhilata Kuridstanê ye ku bi awayek sîstematîk li gor standarda alfebêya hevbeşe Kurdî ya evraz tê weşandin. Ev pêgav bi awayek eşkere nasnameya serbixwe ya zimanê Kurdî ji nasnameyên serdest yên zimanên cîranan cuda dike.

Bi hêviya ku berê dara «Agirî» çandî, hê tamek xweştir bide sifreya wêje û rojnamevaniya Kurdî.

**şêwaza nivîsandinê, mesaja ku "Agirî" belav dike û rawesta wê karîgeriya rasterast datîne ser xwegirtina nasnameya serbixwe ya neteweyî**


Selam Îsmaîlpûr

## Niqurçk

Kêmtir ji çar salan bi ser vê rojê de derbas bûye ku Xamineyî di nêmêja Înê de got: "Rêzdar serkomar kesê herî nêzîk bi min e, û boçûnên me nêzî yektir in". Bi qewlê Kurd dibêjin her ewk ewkêêêêê (hûn bixwe dizanin mebesta min çi ye) nas dike.

Niha û piştî derbasbûna wan çend salan, ji zimanê wan bixwe ve jî me re derdikeve ku ew kesê ku kopiya Komara Îslamî li ser filaş meymûriyeke biçûk û nîşanderê zarokê derûna Xamineyî ye, kesekî çawa ye.

Elî Larîcanî serokê parlementoya rejîma Îranê dibêje ku reftara serkomar, reftareke mafyayî û bê exlaqane ye, û nîşaneya "torîtî û tiramîtiya çandî" ye, îca torîtiyê çi ciyek di nav ferhengê de heye, bila eva jî bimîne bo hecî senator Larîcanî. (helbet qisa seyîd Elî Xamineyî ji bîra xwe nebin ku got ez û Ehmedînijad, em rengê hev didin).

Serdar Seîd Qasimî serokê kincşexsiyên rejîmê dibêje: "Ehmedînijad wek hêstirê şêt lê hatiye, naxwaze ku bêy zîtik avêtinan belaya xwe li serê me veke". (li wir de jî Seyîd Elî û Mehmûd rengê hev didin, yanî Xamineyî jî hînî zîtikan bûye).

Mele Hesenî pêşnimêjê bajarê Urmiyê dibêje: " Heke ker jî wek Ehmedînijad kar bike, û zehmetê bikêşe, wê demildest tirrîn lê bê, û wê terrayî lê bibire". (ew jî ret nake ku ew ker, rengê weliyê wan yê Feqîh dide, yanî her du jî guhê wan dirêj in).

Axa bixwe jî dibêje: "Yên ku pêşniyara gotûbêjên Amerîkayê, wan kêfxweş dike (wate Ehmedînijad), ew kes yan gêl û nefam in (wek Ehmedînijad ku rengê wî jî dide) yan bi hêrs û îxanetkar in, û kesên di parlementoyê de jî dikne qîre qîr, ew jî bê exlaq in" ( dîsan jî wek Ehmedînijad ku rengê wî bixwe dide). Divêt em vê yekê jî zêde bikin ku axa Seyîd Elî gellek dizane, lewra bêçine negotiye ku Ehmedînijad kopîkiriya wî û nîzama wî ye.

Pasdar Mehdî Taîb fermanderê binkeya "Emmar" dibêje: "Sûriye parêzgeha sî û pêncê ya Îranê ye!!! û di warê giringiya sitratijî ve, bo me piştî Tehranê ye. Herweha dibêje ku heke dujmin hevdem êrîşê bike ser Sûriye û Xuzistanê, em divêt desta ji Xuzistanê berdin, jiber ku heke em Sûriyê bidorînin, emê Tehranê jî bidorînin".

Hêjayî basê ye ku parêzgarê Sûriyê! (Beşar Esed), parêzgarê Lubnanê (Hesen Nesrulla) û parêzgarê Vênzoilayê (Ayetullah Çaviz), Elî Xamineyî wek serokê Banka Nawendî û nûnerê xwe li parêzgeha Îranê!!! de dizanin.

# Agirî serbilind e wek çiyayê Agirî û şoreşa Agirî


Rostem Cehangîrî

Piştî borîna çend salî bi ser derkirina hejmara yekemîn a Agirî de, niha êdî hejmara 200 bi serbilindî ve derdikeve, û di nava karwanê rojnamegeriya Kurdî de xwe nîşan dide. Ew yek hem ji bo PDKÎ û hem jî bo tevgera rojnamegeriya Kurdî a li kurdistana Rojhilat, şerefek mezin û serkevtinek bê hempa ye. Ji bo birêveber û nivîskarên vê Agiriya xweştevî ew yek serkevtinek mezin bû, jiber ku hebûn ew kesên ku şik û guman ji şiyanên birêveberên Agirî hebûn û jêvebûn Agirî heya ser dom nake, û wê bisekine. Lê birêveberên Agirî selimandin ku ew xwedî şiyan in, û bêhnek fireh hene. Belê Kurdan bi taybetî kurdên Kurmancîaxêv li her derê pêşwaziyek baş ji Agirî kirin û bi derçûna Agirî kêfxweş bûn.

Ji mêjdem bû ku cihê rojnameyek Kurmancî li nav ragehandina PDKÎ de vala bû, û ew kêmtirxemî bibû sedema vê ku PDKÎ gellek caran bê rexnekirin, lewra herçend direng jî bû, lê PDKÎ biryar da ku vê valahiyê tijî bike, û di doma bernamerêjiyek baş û bi cî, rojnameya Kurmancî ava kir û navê wê jî bû Agirî, ku hem navê çiyayê Agirî bû, û hem jî ew nav ji navê şoreşa Agirî hate wergirtin. Herçend ew kesên ku bo birêvebirin û karkirina di Agirî de hatin diyarîkirin tecrubeya karê rojnamegeriyê tunebûn, lê wan zendê xwe bo karê rojnamê hildan û şiyan yekemîn hijmara Agirî derxin. Ew xebata nivîskarên Agirî li her qonaxekê de berdewam bû heya gihîşte rojek wek îro.

Agirî karî erkê xwe di warê gehandina zanyariyan li ser siyaset û bîrûboçûnên PDKÎ bigehîne Kurdên perçên din ên Kurdistanê, û herweha Kurdên Kurdistana Îranê jî, ji xebat û tekoşîna perçên din agehdar bike. Niha êdî li perçên din ên Kurdistanê de, xelk hem PDKÎ û hem jî rewşa Kurdistana Îranê baş nas dikin, lewra em dikarin bêjin ku Agirî bûye pirebaza navbera wan sînorên destçêkirî de.




Ez dibêjim serkirdayetiya PDKÎ biryarek bi cî û şoreşgêrane da. Lewra destxweşiyê dibêjme vê rêberiyê, ji ber ku selimandin ku bawerî bi wan armancan hene ku jêre xebatê dikin. Diayre ku her biryarek weha kêrî meznahiya partiyeke wek partiya Qazî, Qasimlo û Şerefkendî tê.

Ez dixwazim sipasiya xwe li desteya nivîskarên Agirî bikim ku bi kar û xebata xwe berdewam hejmar bi hejmar diçne pêş, û niha êdî bi xweşî ve li her ciheke cîhanê xwendevanên xwe hene. Lewra nivîskarên Agirî cihê rêzgirtinê ji aliyê xortên gelê xwe ve ne. Hejmara 200 ya Agirî ji we û ji gelê Kurd û ji tevaya xwendevanên Agirî pîroz be. Agirî jî serbilind e wek çiyayê Agirî, û wek şoreşa Agirî.

# Şanazî Û Sermayeya Jiyana Min

Selîm Zencîrî

Ji rojbûna Agirî re 10 sal derbas bûn. Ew çiqas mezin û geş dibe, ez jî ewqas şad û şanaz, lê pîr dibim.

Agirî demekê pişta xwe da ber bar û erkê giran ku nehezan digot wê li bin derneçe û bikewe qedeman, lê Agirî bi vîn û îradeya xwe, bi ked û tekoşîna xwe, bi handan û eşqa evîndarên xwe û bi şîretên dilsojên xwe hêz û qawet digirt û berdewam dibû li ser şerê bo jiyanê.

Agirî bi tewirê fikr û raman û dûrbîniya xwe, sînorên destçêkirî herifandin û girovera dîda xwe ewqas berfireh kir ku zû tevlî karwanê navdaran bû. Her eva ku xweşmêran gotibû wê egîd û lehengek navdar jê çê bibe ku mîna çiyayê Agirî serbilind, wekî hêza Agirî jî qehreman serê me tevan bilind bike.

Niha êdî Agirî ne zarokê 10 salî, belkî xortek çeleng, bibandor û bi ezmûn e. Ew malbatek mezin û qedirgiran e. Ew dibistana ziman, zankoya jîn û jiyan e. Jivangeha dildaran û kelema çawê neyaran e ...

Ez wekî yek ji avaker û endamek ji malbata Agirî, pir serbilind im ku ji hejmara yekemîn ve heya niha (hejmar 200) bênavber têde dixebitim û şanaziya berpirsatî û sernivîskariya 70 hejmarên wê li tûrikê xebat û şanaziyên xwe de dibînim. Pir dilxweş im ku li vê mektebê de pêgihîştim û ceribînên baş bidest xistin. Pir bextewer im ku ji riya Agirî ve min gelek hevkar, heval, xûşk û bira û xwendevan ji xwe re dîtin ku ji riya Agirî ve wan silav dikim û çavê wan radimûsim.

Agirî beşek ji sermayeya menewî a jiyana min e ku bi tu zêr û gewherên dunyayê re naguherînim. Agirî xemlek cuwan daye deftera jiyana min ku bi vedana her rûpelek ji Agirî, rûpelek ji deftera jiyan min jî li wan 10 salan têvedan ku hilgirê gelek bîranîn û serhatên xweş û nexweş, lê şîrîn in.

Agirî mala min a duyemîn e.

Agirî zarokê min ê duyemîn û birayê Arîn e. Silametî, serbilindî, temendirêjî, serketin û bexteweriya wan jî, hêvî û daxwza min e...





# Agirî Gilêlka Çavên Me Ye

kawûs Ezîzî

Beriya her tiştî ez bi hewce dizanim ku derketina hejmara 200 a Agirî ji we endamên hêja pîroz û bimbarek bikim.

200 hejmar ji duheftînameya Agirî niha êdî em dikarin bêjin ku bûye xîmê rojnamgeriya kurmancî û bi pîtên Latînî di R ojhilatê kurdistanê de. Herçend beriya 30 salî jî li Parîsê binkeya nûneratiya PDKÎ "Nûçe nameyek" bi kurmancî û bi pîtên Latînî derdikir ku vî çaxî karîbû bibe çavkaniyek mezin a nûçe û bûyeran li rojhilatê kurdistanê bo kurdên beşên din yê kurdistanê.

Eger em bi kurtî bînne ziman, dikarin bêjin ku Agirî li derveyî welat û li bakûr û rojavayê Kurdistanê, bûye zimanê PDKÎ.

Yekemîn parta kurdî a rojhilatê kurdistanê PDKÎ bûye ku rojnameyek bi zaravayê kurmanciya jorîn û bi pîtên Latînî derkiriye û zêdetir ji 10 salane ku ji di bin hemû astengiyan de jî derketiye û didome.

Agiri beşek mezin ji kesayetiya meinewî a PDKÎ ye ku erka ser milê me hemiyane em wek gilêlka çavên xwe biparêzin.

Ne tenê îro, li paşerojê de jî Agirî wê rolek mezin bilîze û muxatebên zêdetir bo partiyê çê bike. Renge îro em giringiya Agirî bi awayê hewce seh nekin, lê di paşerojê de wê derkeve holê ku Agirî çavan bûye zaníngehek kurdî.

Carek din serkevtin ji bo wan hevalên ku temenê Agirî gihandine 200'î û rûmeta herî mezin ber wan hevalan dikeve.

# 22'ê Rêbendanê Û Encamên Wê



Dara Natiq



Neteweyên zulmlêkirî ji aliyê rejîma Paşatiyê ve, di sala 1357'an de, bi merema rizgarbûn ji zulm û sitema civakî û siyasî, û derbazbûn ji bêçareyî û tepeserkirinên rejîma Paşatiyê, serhildanek seranserî pêk anîn. Serhildanek ku tewahiya tex û qatên civaka zulmlêkirî a Îranê, bi awayek ektîv û di pêxema rizgarî û bidestxistan mafên netewî û dabînkirina sîstemek azad û dêmokratîk, li ser bingeha dadperweriya civakî, di navbera tewahiya pêkhateyên welat de beşdar bûn. Şoreşek ku bi fîdakariya netewên têniyê azadî û serbestiyê, di 22'ê Rêbendana sala 1357'an de, dawî bi deshilata 50 salî a malbata Pehlewî anî.

Mixabin axûndên Îranê di bin siya rênîşanderî û biryarên Xomeynî û hevhizrên wî de, bi mifahwergirtin ji hesta olî ya xelkê û dana hijmarek qewl û sozên xapîner, encama şoreşê ji rê derxistin û deskevtên wê ku bi xwîna hezaran xortên azadîxwaz hatibûn avdan, bi talan birin.

Xomeynî û hevhizrên wî di demek kurt de karîn ku perûbalên xwe bi ser welat de bikişînin û di refrandomek nedemokratîk de, di 10'ê Xakelêweya sala 1358'an de, xelkê neçar bikin ku di navbera rejîma Paşatî û Komara Îslamî de yêkê hilbijêrin, û herweha derfeta beşdariyê bi tu partî û rêxistinek din nehat dan ku beşdariyê di refrandomê de bikin. Refrandomek ku ji aliyê PDKÎ ve bi nedemokratîk û xapîner hat nasandin û di helwêstek dîrokî de hat baykotkirin.

Hatina Xomeynî û hevhizrên wî bo ser deshilatê bi vî awayî, cardin bû sedema çêbûna dîktatoriyê û qederek nediyar û ketine nav telika mirovên dirinde û birçî, ku weke gurê har azadixwazên welat jinav birin û, welat bi tevahî mîlîtarîze kirin.

Komara Îslamî ku li ser bingeha eqliyeta sedsalên navîn hatibû avakirin, bi awayek nedemokratîk û xwesepandin deshilat bi destve girtin. Bi awayê hovîtî û mêtodên nemirovane, dest avêtin tepeserkirin û zext û gîvaşa ser azadîxwazên welat û pêş bi her pêvajoyek azadîxwazî girtin û herweha bersiva xwastekên rewa ên neteweyên Îranê ku yek ji wan neteweya mafxwaz a Kurd e, bi agir û asin dan. Xomeynî di fitwayekê de ku bi dijî xelkê Kurd ragehand, şerek seranserî li Kurdistan xiste rê û bi hezaran kesî ji xelkê bêtawan ê Kurdistanê qetil kirin û bi sedan gund kavil kirin.

Qedexekirina tekoşînên medenî û mafxwazane, helandina çandî û kultûrî, ewlehîkirina rewşa welat, avakirina nawendên sîxurî, daxistina zanîngeh û nawendên rewşenbîrî di navxwe ya welat, û herweha siyaseta geşepêdana terorîzmê, destxistina di nav karûbarên welatên din, hewildan bo gehiştin bi çeka etomî, binpêkirina mafê mirov, giranî, bêkarî û bi dehan diyardeyên din, pişta xelkê şikandine.

Rejîmê di salvegera avakirina xwe de, bi gefxwarinan û bi zorî xelk neçar kir ku derkevin kolanan, da ku salvegera avabûna xwe birêve bibe, lê serbarê hemû hewl û gefxwarinên rejîmê, dîsan jî bi taybet li Kurdistanê de xelkek kêm beşdarî di vê salvegerê de kirin.

# Nerîna Lîderan



Mehmûd Ehmedînejad

Ger Amerîka zora çekê li ser xelkê Îranê hilgire, ezê bixwe bi wan re gotûbêjan bikim.



Can Kirî

Peyama min bo xelkê Îranê rohn û zelal e, em dixwazin ku dîplomasî li kirîza programa navikî a Îranê de serkevtinê bi dest bixe.



Receb Teyib Erdoxan

Danîna xeta boriya veguhestina petrolê ji Herêma Kurdistanê bo Turkiyê karekî yasayî ye û ne berevajiya destûra Iraqê ye.



Murad Qereylan

Tu kes çekan danayne. Lê ger ku pêvajoyek cîdî pêş bikeve û pêngavên ku bên xwestin bên avêtin, em jî dê biryara xwe bidin. Lê hedefa wan manîpulekirin e. Divê ku tu kes ji vê yekê bawer neke.

# Agirî Rêz Ji Mafê Xwendevanên Xwe Girtiye


Nahîd Husênî

Li dema nêzîkbûna bi roja cîhaniya zimanê dayîk, 200 hejmar bi ser weşan û derketina rojnameya rengîn û bi seng û pirr buhagiran ya Agirî de derbaz dibe û Agirî di heyamê derketina wan 200 hejmarên xwe de selimandiye ku bi pebendbûna bi pirensîpên rojnamegeriyê, bi çap û bilavkirina nûçeyên rast û berhevdana hûr û hemû alî a bûyerên pêwendîdar bi Kurdistan, herêm û cîhanê, rêzek bê hempa ji xwendevanên xwe girtiye. Lewra jî îro rojê wek rojnameyeke cihê baweriyê li Kurdistanê de cihê xwe kiriye û rêjeya beşdariya pênûsên cuda û kesayetiyên naskirî di rojnameyê de vê rastiyê diselimînin.

Di heyamê derçûna rojnameyê de, ew rojname li ser destê wan tekoşer û xebatkaran weşana xwe domandiye ku bi ew qasê jixwebihorîn bi şev û rojan mijûlî xebitîne ku serkevtina Agirî jî encama vê yekê ye.

Di cihê xwe de ye ku ez destxweşiyê li tev pêrsonelên şoreşger û xemxwar ê Agirî bikim ku di heyamê wan 200 hejmaran de pêve vestiyan û pîrozbahiyê ji xwendevanên Agirî dikim. Hêviya min berdewamî û serkevtina zêdetir bo Agirî ye bona xizmeta bi zimanê Kurdî û hurmetgirtina zêdetir ji zimanê dayîkê.

## Qeterê Balyozxaneya Sûriyê Li Doheyê De Rasetî Dijberên Esed Kir



Hevalbendiya netewî ya Sûriyê bi derkirina daxuyaniyekê ragehand ku dewleta Qeterê ku pêştir hevalbendiya dSûriyê wek nûnerê rastîn ê xelkê Sûriyê bi fermî nas kiribû, niha bi awayek fermî balyozxane radestî wan kiriye.

Li gorî zanyariyan Nizar Elherakî yek ji endamên hevalbendiya neyarên Sûriyê ku pêştir wek nûnerê vê pêkhateyê li Doheyê de hatibû diyarîkirin, wek balyozê fermî ê Sûriyê li Qeterê de karê xwe dest pêkir.

Piştî biryarek weha dijberan alaya xwe li ser banê binkeya balyozxanê danîn.



## Hêzên Rejîma Îranê Sê Ciwanên Kurd Bi Awayek Hovane Kuştin

Hêzên Întizamî sê Ciwanên Kurd xelkê bajarê Mehabadê, li devera çiyayî a bajarê Banê avêtin xwar, ku li encam de canê xwe ji dest dan.

Nêzîk bi 150 kes ji kes û karên wan sê kolberên kurd, roja 10' Şibata 2013'an bi armanca wergirtina termê kuştiyan serdana nawendên ewlekariyê li bajarê Banê kirin, û li encam de karîn termê wan wergirin.

Li gorî zanyariyan di dema bi axê sipartina termê wan kuştiyan de bi dehan pasdar û hêzên ewlehiyê dewra goristanê girtibûn û tirs ji nerizayetî eşkere kirina xelkê hebûn.

Hêjayî basê ye ku roja şemiyê 9'ê Şibatê çar kolberên Kurd bi navên Elî kurê Mam Nadir, Husên û Hoşyar Rostem nijad kurên Mihemed (çavşîn) akinciyê taxa meydana heywanan li Mehabadê û Rizgar kurê Kemal Ketanî akinciyê taxa Dolî Kerwêşke ya Mehabadê li herêma Şehabedîn ya Banê de ketin boseya hêzên rejîma Îranê û li encam de Elî şiyabû xwe ji destê wan hêzan rizgar bike, lê di dema helatinê de ew dikeve ser mîneke çandî de û piyeke xwe ji dest dide.

## Agirî Ji Hejmara 1 Heta 200

Belkî rojekê kesî bawer nekiriba ku Agirî bi weşana xwe ya Kurmancî bigihîje hejmara 200`î. Lê xebatkarên Agirî yên evîndarên zimanê Kurdî û Kurmancî ev berpirsyarî kişandin ser milê xwe û rolê xwe yê dîrokî bi başî lîstin. Destpêkê dixwazim spas û rêzên taybet pêşkêşî rêveberên Agirî ji hejmara 1 hetanî 200`î bikim û hurmet û pêzanînên taybettir jî ji hemû wan nivîskar, rewşenbîr, rojnamevan û wêjevanên Kurd bikim ku li her çar parçeyên welat û derve li pişta duheftenameyê bûne û weke mala xwe hesibandine.

Derketin û weşandina çapemniyekê bi zaravê Kurmancî bo me Kurmancên Rojhilatê Kurdistanê xewnek bû, ji ber ku piştî şoreşa Simkoyê Şikak ku rojnameya Roja Kurd dihat belavkirin û hin hejmarên kovara Sirwe jî nivîsarên kurmancî belav dikirin, Agirî yekemîn ezmûna karê rojnamegeriyê li Rohilatê Kurdistanê bi zaravê Kurmancî bû. Ev pêngava mezin jî PDKÎ hilgirt û bi rastî jî cihê rêzgirtinê ye. Agirî ji hejmara 1 heta 23`ê, heyvê carekê dihat belavkirin, piştre bû 15 rojî.

Ez ji hejmara yekem bi Agirî re bûm. Heta hejmara 12 bira û hevalê zana û hêja kek Mihemedsalih Qadirî berpirsyar bû. Min û çend hevalên din di amadekirina nivîs û teknîkî de alîkariya wî dikir. Min hem karê nivîsîn, werger û amadekirina tekstan dikir û herwiha karê dîzayn û mîzanpajiyê. Hemû hevalan bi evînek safî û dil û can ked didan û zehmet bo peyvên Kurmancî dikişandin. Ji xwe Agirî bi şopandin û keda Kek Rostem Cehangîrî û kek Mihemedsalih hat avakirin. Di 12 hejmaran de ku ez û çend hevalên din hevkarên kek Mihemedsalih bûn, em wek moste gellek tiştan jê elimîn, ku bûn bingeh heta Agirî bigehîje hejmara 200`î. Ji hejmara 12 heta 126`ê ez berpirsyar (sernivîsakar) bûm, lê bi rastî ger hevkarî û keda Selîm, Dara, Emîr, Diyar, Meryem, Omîd, Hemîd, Cewad û bi taybet jî zehmet û rêniwîniyên kek Mecîd Heqî nabûnaya, Agirî qet nedigiha vê hejmarê.

Destpêkê me hemûyan ezmûnên baş tunebûn di warê rojnamegeriyê de, lê hejmar bi hejmar naveroka Agirî baştir dibû û dîzayn jî herwiha. Îmkanatên me gellek kêm bûn, bi îmkanên herî kêm kar dihat kirin û ev evîna kûr bi peyv û wêjeya Kurdî, Agirî pêşde dixist û heval bê westiyan dixebitîn. Em di pêvajoya karê Agirî de perwerde bûn û me pirr car şaşîtî kirin, heta em baştir bûn û me şaşîtiyên xwe kirin xalên bihêz. Bingehên fêrbûna Kurmanciyeke standard ya me ji Agirê destpê kir û îro gihîştiye hejmara 200'î. Bejna xwe li hember yek yeka peyvên Kurmancî yên Agirî ji hejmara 1 heta 200`î ditevînim û ji xebatkarên hejmara 1 heta 200`î pîroz dikim û berdewamiya weşana Agirî hêviya min a mezin e. Agirî mala min e.


Azad Kurdî



Pêyxam Hişmetî

# Hilbijartin Yan Destnîşankirin?



34 sal berê, dema ku stûnên dîktatoriyeta Paşatiyê li Îranê ber bi hilweşînê dibûn, evîndarên azadî û demokrasiyê bi hêviya bidestveanîna wê bûn, lê çavrêtiya wan pêk nehat. Ji ber ku desthilatdarên nû, ramanên gemar di ser de hebûn û baweriya wan bi azadî û demokrasiyê qet nebû. Ev bê bawerî di hilbijartinên pey de bi awayên cuda - cuda xwe derxist ku qanûn û biryara herî ne demokratîk `çavdêriya baş û rindzaîna kêrhtîbûna berendaman` derket holê.

Hilbijartinan li her welatekê qanûnên taybet bi xwe hene ku çawaniya beşdariya dengderan û berbijaran destnîşan dike. Li Îranê ji xeynî astengên qanûna hilbijartinan û desthilata bê sînor a Konseya Parêzvanên rejîmê ku endamên wê hemû Meleyên olî û ne hilbijartî ne, bi salan e rêya berendamên hilbijartinan asteng kiriye. Komara Îslamî ligel astengên ku li pêşbrî hilbijartinên azad ên xelkê pêk tîne, bendavek bi navê `çavdêriya baş û rindzaîna kêrhtîbûna berendaman` aniye holê ku saziya Konseya Parêzvan vê kkontrla xurt dimeşîne. Endamên vê konseyê ji aliyên serokê olî tên destnîşankirin ku ji destpêk hea dawî proseya hilbijrtinan kontol dikin û tenê mafêxelkê ev e ku deng bidin berbijarên îlankirî ji aliyê vê saziyê ve. Bi wateyek din encamp û çarenûsa hilbijartinan diyar dike.

Hilbijartin di sîstema `Welayeta Feqîh` de herdem nimayişî bûne û dewlet bona nimayişkirina rêzên dirêj û tejî xelk hilbijartinan bikar tîne da ku bi raya giştî ya cîhanê pêşan bide xelk di desthilatê de beşdar e û hikûmeta dînî maf ranî dibe. Li welatekê ku qanûna bingehîn bi eşkere hemû rêvebirina welat ûp biryarên girng û stratejîk dayine rêberê olî û ew jî kontrola her tiştî dik, êdî hilbijrtin di wî welatî de nayê çi wateyekê.

û azadiyên xelkê dabîn dike û rejîm xwedî pêgehek xurt a civakî ye. Loma desthiltdarên Îranê bi hemû şêwazekê hewlan didin rojeva hilbbijartinan grm bikin û bi xapandin jî be cemawer bikşînin ser sindoqên dengdanê. Heta bikarin sextekariyê di hilbijartinan de dikin û di nav berendamên bêjînkirî, kesên herî nêzîkê rêberên rêjîmê ji sindoqan tînin der. Ji xwe gellek cihan ne lazim e deng jî bidin, ji ber ku bi eşker sindoqên din datînin cihên wan sindoqan ku bi xwe tejî dikin. Herwiha serhejmariyên dengdanê herdem bi awayekî xeyalî dibin jor da ku wisa bidin nîşandan rêjeyabeşdarya xelkê zêde bûye. Encama wan hilbijrtinan jî, hinek guhertinên biçûk di asta çend dezgehan zêdetir derbas nabe. Ji ber ku kiryarên saziyên hilbijartinê li Îranê û hem qanûna bingehîn û herwiha ezmûnasî û çar salên borî nîşan dide ku div ê dewletê de dezgehên hilbijartnên nimayişî û sembolîk in rêvebirina hilbiartinan pêngavek nimayişî ya eşkere ye ku hebûna vê niha bo xelkê qet ne giring e. Ji ber ku xelk bi hilbijartinê tu hest bi guhertina rewşa jiyan û rêveberiya xwe nakin.

Hibijartin nîşaneya destêwerdan û beşdariya xelkê di jiyana siyasî û civakî ya wan e û şert û mercê sereke yê bicîhatina wê, pêkhatna azadiyên demokrtîk, azadiya beşdarî û çalakiya partiyên siyasî, rêxistn, komele, senkîda û çapemenî û medyaya serbiwe ye û mafê hilbijartin û berbijêrbûnê bo wana ye. Bi van şert û merc desthilat û îradeya xelkê ewle û ga-

Belkî ev pirs vir bê pêş ku wisan e çima dewlet bi milyar tûmen mesrefa proseya hilbijqrtinan dike li Îranê. Eşkere ye di rewşa îro de her derê behsademokrasî û hikûmeta gelserdestiyê tê kirin, hikûmetên dîktator desthlata xwe di xeterê de dibînin û bi vê rêyê dixwazin nîşan bin ku qaşo hikûmetek xelkî ne. Lê gelo di sîstema dîktatoriya Komara Îslamî de tiştek bi vî reng û nîşanî heye? Bêgumn na. Ji ber ku desthilata rewa û bê sînor di destê rêberê olî de ye û tea serê we biryarer û desthilatdarê hemû welat e. Loma xelk nikarin ti rol û beşdariyek di jian û çarenûsa xwe de bilîzin.

Li gor olê fermî yê dewleta Îranê, tenê oldarên Şiî dikarin bibin rêber û rêveber, loma hemû hevwelatiyn sunnî li Îranê ji vê mafî bêpar hatinekirin. Li 34 salên borî ev yek bi sedî sedhatiye rêvebirin û tu kesek sunnî ol nekariye bibe rêveberek heta derece 10 d vê rejîmê de. Ev yek binpêkirina eşkere ya maf û azadiyên hevweltiyan e ligel sedan nimûnyên din ên ne demokratîk.

Gerra 11'hemîn a bi nav hilbijartinên serkomariyê li Îranê di rê de ne, xelk gellek bi xemsarî ligel vê hilbjartinê tev diger, lê bi berhevdana hemû van fakteran û pirr sedemên din, nexapin û pêdivî ye ku xelk xwe nekin şewata agirê tendûra hilbijartinên vê rejîmê û Komara Îslamî pê germ nekin.

Rojev

## Şoreş Zarokên Xwe Dixwe!

Selîm Zencîrî

Eva gotinek e ku li ser gelek şoreşan weke ya Uktober, Firansa û ya 1979 a Îranê tê kirin. Ji ber ku dîroka sê dehsalên derbasbûyî ên Îranê rast li vê mesîrê de gav avêtiye. Dîrokek ku şerê desthilat û talanê ji riyên tund û tûj û binpêkirina hemû pirensîpên exlaqî, mirovî û şoreşgerî ji aliyê desthilata hakim ve berdewam kiriye. Dîrokek ku siyaseta cudahîdanan, serkut û hezfên siyasî, fîzîkî, coxrafiyayî û heta civakî di asta tak û kom de qalibê xwe girtiye.

Gelên Îranê ew şoreş bi ser xistin û karîn "xirabek"ê li ser kar bavêjin, lê bi sadeyiya xwe "xirabtir"ek anîn serkar. Çunku kultora Xumênî û derdorên wî jî heman îstibdadî, pawanxwazî û li ser bingeha tund û tûjî, bêbextî û direwan bû. Xumênî jî her zû bûye evîndarê xatûnek bi navê hêzê û xîmên desthilata xwe ji riyên neyasayî ve da qahîmkirin. Piştî jinavbirina alîgir û rayedarên rejîma paşatiyê, cudatî xistin nava refên xelk û gelên Îranê û her roj alî û cudabîrên siyasî û mesebî bi dujmin û sîxorê biyaniyan û "muharibe"dan zanîn. Bi taybetî ku bi nîsbet gelê kurd û PDK Îranê çi xemsarî nekirin û bi awayên hovane ber bi rûyê wî gelê mafxwaz bûn û nehiştin ku nefesek azad bikşînin.

Ew siyaseta rejîmê nemaze "xwedî"û zarokên wefadare rejîmê jî vedigre ku bi salan di xizmeta pêşvebirina siyaset û armancên rejîmê de bûne û ji tu cinayetekê xemsarî nekirine. "Xwedî"ên ku tu nakokî û dijberiyek li ser naverok, îdeolojî, siyaset û stratejiya nîzamê ninin, belkî di taktîk û şêwazên birêveberî, desthilata pitir û talan û doşîna zêdetir a xelkê de hin ciyawazî û dijberî hene. "Xwedî"ên ku carna heta xwe wek opozîsyon û parêzerê berjewendiyên xelkê jî nîşan didin. Weke binav reformxwazên hikûmetî, Tevgera Kesk û niha jî Ehmedînejad û derdorên wî ku bi "Seranê Fitnê"tên nasîn û dixwazin xelkê li vê qonaxa hesas û aloz a Îranê li warê aborî, siyasî û civakî de mijûl, dilxweş û hêvîdar bikin û carek din temenê rejîmê dirêj û gemiya wê jî li vê deryaya tofanî de rizgar bikin.

Niha ku desthilata nerewa hest û hêza dadperweriyê ji hakimên Îranê standiye, tenê hêz û îradeyek qahîm û yekgirtî dikare vê desthilatê "mehar" û jinav bibe. Ew jî xelk e. Xelkê ku 34 salin li hemberî hemû zulm û cinayetên rejîmê de berxwe didin û ber bi rûyê faşîzma rejîmê bûne, weke borkanekê ne ku ji sîngê şevitî ê çiya pêxorê dikin û her gav egera teqîna wê heye. Ew êdî bi başî ji rejîmê hesiyane û vê carê dixwazin bi têgihîştin ji kultora demokrasî û wekheviyê, dawiyê bi vê hikayeta şûm li Îranê de bînin ku "Şoreş zarokên xwe dixwe"!



Ebdulla Bêhrûzî kurê Hesen, sala 1334'an a rojî li gundê Hemze Qasim a ser bi herêma Hewşarê hatiye dinê.

Ebdulla Bêhrûzî bi sedema hejarî û destkurtiyê, nikare here qutabxanê û mixabin ji xwendinê bêpar dimîne. Her di gundê xwe de dewrana zarokatiya xwe derbas kiriye û, dema temenê wî gehişt temenê karkirin û şixulînê, karûbarên mala xwe birêve biriye.

Hevpeyvîn: Faxir Molûdî

Ebdula Bêhrûzî derheq têkiliya xwe bi siyaset û hizbatiyê re, weha ji Agirî re axivî: "Dema şoreşa gelên Îranê di sala 1357'an de dest pêkir, di nav xelkê de weha bas dikirin ku partiyek bi navê Partiya Demokrat heye û rêberê wê jî Dr. Qasimlo ye. Eva bû despêk ku xortên gundê me kombin, di kombûnê de me biryar da ku hevkariya PDKÎ bikin û bibin pêşmerge".

Ebdulla roja tevlîbûna xwe bi PDKÎ re weha bas dike; "Di meha Newroza sala 1358'ê de, ez û Sidîq Edîmî, Elî Şikarî û Sidîq Nadirî bihevre û di rojekê de tevlî partiyê bûn û, yekemîn pêşmergê partiyê ku hat bal me, Elî Nasirî naskirî bi Elî Tîrbar Fermandê Lika du ya Hewşarê bû. Navbirî axivtinek ji mere kir û têde îşare bi zehmetî, birşîtî, birîndarî, mirin û tewahiya arîşeyên ser rêya jiyana pêşmergatiyê kir, lê me bi şanazî ve qebûl kir ku kincên pîroz ên pêşmergatiyê lixwe bikin. Lê mixabin Sidîq Edîmî li "Derevyana Şêx" û li herêma Xurxure ya ser bi bajarê Seqizê û, Elî Şikarî li gundê "Bîrm Qelasî" a ser bi navçeya Hevşarê şahîd ketin û Sidîq Nadirî jî bi destê çekdarên Komara Îslamî hat êxsîrkirin û di bin îşkence û lêdanên mirovkujên Komara Îslamî de, her du çavên xwe jidest dan.

Ebdulla Bêhrûzî roja herî nexweş a jiyana xwe weha tîne ziman; "Rojên nexweş di jiyana min a pêşmergatî de zaf in, jiber ku jiyana pêşmergatî zehmetiyên xwe hene, lê roja herî nexweş, şehîd ketina rêberên serkirde Dr. Qasimlo û Dr. Şerefkendî ne. Gelek hevalên min li kêleka min şehîd ketine û ez pir aciz bûme, lê bandora şehîd ketina wan du rêberên serkirde pir bi êş bû. Roja din ya pir nexweş di jiyana pêşmergatiyê de eve ku, dema navçeya hewşarê di destê PDKÎ de bû, bi sedema êrîşek giran a Komara Îslamî PDKÎ neçar ma ku deverê bi cih bihêle, û ber bi navçeya Tîleko a Seqizê paşekişê bike. Di dema şer û paşekişê de mixabin 12 pêşmerge ji aliyê hêzên rejîmê ve hatin dorpêçkirin, piştî berxwedanek qehremanane 6 ji wan pêşmergan derbas bûn û mixabin 6 bi saxi ketin destê mirovkûjên Komara Îslamî û hatin îdamkirin.

Ebdulla Bêhrûzî roja herî xweş a jiyana pêşmergatiya xwe weha tîne ziman; "PDKÎ komîteya hêza Hewşar bona me'mûriyetekê şand "Deştê" li navçeya Rebet a ser bi bajarê Serdeştê. Bona dilxweşiya ji me'moriyeta han, tev pêşmergan me dawet dikir, ji nişkê ve Dr. Qasimlo hat û seredana me kir. Bona rêzgirtin ji Dr. Qasimlu dawet hat berdan, lê Dr. Qasimlo got "Em hemû bi hevre îro dawetê dikin" û bi xwe çû û serçopiya govendê girt. Herweha piştî midehek çend rojî, Dr. Qasimlo bona çavaniya birêvebirina karûbarên partiyê, erkên pêşmerge û çavaniya riftarkirin digel êxsîrên şer de civînek pêk anî. Eva rojên herî xweş ên jiyana min in.

Navbirî dibêje ku bîreweriyek pir balkêş a min heya ku dikeve navbera rojên xweş û nexweş ên jiyana min de, ev jî ew e ku, "Fermandeyên hêza pêşmerge biryar dan ku li gundê "Nêzî" a ser bi navçeya Rebetê emeliyatek leşkirî bikin, Dr. Qasimlo pêdagirî li ser vê yekê dikir ku bi xwe beşdariyê di vî şerî de bike. Yek ji pêşmergeyên partiyê bi navê Şerîf, bona pêşîgirtina ji beşdariya Dr. Qasimo di şer de, sîleyek li Dr. Qasimlo xist û got, bona mana kesên weke te bi hezaran Şerîf amade ne canê xwe gorî bikin û bi sedan kesî jî canê xwe gorî kirine, lewma nabe tu başdariyê di şer de bikî. Piştî bidawîhatina şer, Şerîf ji aliyê Deftera Siyasî ve ku li Şîwe Coyê bû hat gazîkirin, piraniya pêşmergan li ser vê baweriyê bûn cezaya Şerîf pir giran dibe, lê berevajî Şerîf ji aliyê Dr. Qasimlo bi xwe ve, bi çekek Birno, û destek kincên Kurdî, hat teşwîqkirin". (Mam Tofîq, Mam Ewlê û Mihemed Nasirî, bo vê rastiyê şahidî dan).

Ebdula Bêhrûzî dibêje daxwaza min ji PDKÎ ew e ku, bi başî ji pêşmergên kevnar ên partiyê ku piraniya wan nexwendewar in, xwedî derkeve. Jiber ku temenê xwe di nav refên pêşmergan de derbas kirine.

Herweha daxwazê ji xelkê Kurdistanê dikim ku, piştevanê PDKÎ bin û hevkariya wê bikin û di dawiyê de jî silavan ji malbatên şehîd û girtiyên siyasî re dişînim.

Ebdulla Bêhrûzî

Me pêşmergan dest bi dawetê kir, ji nişkê ve Dr. Qasimlo hat û seredana me kir. Bona rêzgirtin ji Dr. Qasimlo dawet hat berdan, lê Dr. Qasimlo got "Em hemû bi hevre îro dawetê dikin" û bi xwe çû û serçopiya govendê girt.



Yê ku sîleyek ji Dr. Qasimlo dabû, bixwe ji aliyê wî ve bi çekek Birnoyê û bi destek kincên Kurdî hate teşwîqkirin.

## Selehşûr:
## Beriya Şoreşa Îranê Min Agir Berdidane Sînemayan

Ferecola selehşûr yek ji derhênerên sînema û televîzyona Îranê got ku wî berî şoreşê, sînema dişevitandin.
Li gor nûçegehana "Fars" Selehşûr di fistîvalekê helbest û sirûdan de got: Me baş dizanî ku sînema kanala hatina çanda biyaniyan bo welatê me ye. Piştî şoreşa Îslamî rewş guherin bi serde hat û kesên mesebî bûne sînemakar.
Selehşûr ragehand ku sînema bikujê kesên jixwerazî ye, kesên ku li dû navdariyê digerin û buhayên mirovatiya xwe jî bi egera navdariya xwe binpê dikin. kesê ku baş dizane sînema çi ye, tenê Xamineyî ye û li ser wê baweryê ye ku dibe naweroka sînema bê guhertin û li ser bingeha esliyeta dînî û exlaqiya me be.



## Sîmon Di Bin Çavdêriya Serokwezîr De Ye

Hesen Nesrullah Sedîq ku keça Êzîdî ya bi navê Sîmon Dawûd revandibû û ev bûyer bûbû meseleyeke mezin li başûrê Kurdistanê û derve, hate ragihandin ku ew hatine girtin.
Malpera Warvîn di nûçeyeke xwe de nivîsand ku sekreterê PDK Fazil Mîranî gotiye ku her du ciwanên Kurd niha di bin çavdêriya serokwezîrê Kurdistanê Nêçîrvan Barzanî de ne.
Keça Êzîdî ya 11 salî Sîmon Dawûd roja 09.01.2013 bi xortê Misilman Hesen Nesrullah Sedîq re li komelgeha Şêxka reviya bû.


Çavkanî: AVESTA KURD
Hesen û Sîmon

## Diya Solîna Pênc Salî Hate Azadkirin



Xanim Onur diya Solîna pênc salî ku di doza KCK de hatibû girtin, û keça wê nexweş û li ber mirinê bû, ji girtîgehê hat azadkirin.
Berî serbest berdana wê, Kampanyayek ji bo Solînê hatibû vekirin ku wê bibin cem diya wê. Jiber ku Solîn bi nexweşiya pençeşêrê ketibû.
hêjayî basê ye ku Xanim Onur ji girtîgeha Mêrdînê ya Tîpa E de serbest hate berdan, û Kurê Xanim Onur, yê bi navê Mîrhat jî bi nexweşiya "epîlepsiyê" ye, jiyana wî jî di xeterê de ye.

## Koma Lêkolînê Ya Sînemaya Kurdî Hate Avakirin

li gorî nûeya VOA beşa Kurdî, Çalakiya pêşî ya komê bi pêşandana çar kurtefîlmên Kurdî destpê kir.
Li gor bernameya komê, wê her rojên Înê pêşandana fîlman berdewam bike û bi beşdaran re jî li ser sînemaya Kurdî sohbet werin kirin.
Damezirînerên komê di roja pênasînê de, radigehînin ku ew dixwazin ji bo pêşvebirina sînemaya Kurdî, lêkolînên akademîk pêk bînin, fîlmên Kurdî bigihînin pêş temaşevanan, kovareke Sînemaya Kurdî ya navnetewî bi zimanên Kurdî û Îngilîzî derxin û di rojên pêş de jî li Stenbolê festîvala sînemaya Kurdî saz bikin.

# Giringîdana Agirî Bi Mijarên Civakî








Armanca sereke a PDKÎ ji avakirina duheftînameya Agirî gehandina siyaset û bîrûboçûnên PDKÎ bo vê para Kurdistanê ye ku Kurdên Kurmancîaxêv têde akincî ne.
Zaravayê Kurmanciya jorîn zaravayê piraniya Kurdan e ku hewce ye PDKÎ siyasetên xwe bibe nav wan de jî.
Agirî ji yekem roja xwe de riyek diyar û xuya girtiye pêş û heya niha jî ji vê riyê derneketiye. Yek ji wan xalan giringîdana bi mijarên civakî û mijarên pêwendîdar bi pirsa jinan bûye, û berdewam nivîskarên Agirî mijarên roj û bi bandor di vî warî de bilav kirine.
Sedema serkevtina Agirî di vî warî de vedigere ser pênaseya rast û durust ya wê, ji kêşeyên civakî ên di nav civatgeha Kurdistanê de. Ew kêşeyên ku li encama xemsariya nawendên medenî û her weha siyasetên dijî mirovî ên deshilatê bi ser civakê de hatine sepandin, wek: bikarîanîna madeyên hişber, jinaên li ser kolanan, leşfiroşî, helatina jinan û herweha ciwanan ji mal, û revîna mejiyan û ...hwd.
Eşkerekirina wan rastiyan bi armanca zêdetir hişyarkirina xelkê Kurdistanê û nîşandana rûyê rastîn ê rejîmê û cînayetên wan derheq xelkê Kurdistanê gellek hewce ye. Niha karbidestên rejîma Îranê hewil didin ku civakek kavil û pirr ji fesad pişt serê xwe ve bihêlin.
Ew erkê pîroz ku Agirî birêve dibe wek birina siyasetên PDKÎ bo nav civaka Kurdistanê yek ji hewcehiyên xebata vê serdemê ye, bi taybetî ku mijar bi zaravayekê bilav dibin ku li her çar parçeyên Kurdistanê de xwendevanên xwe hene.
Lewra çalakên medenî, çalakên mafê jinan, mafê ciwanan û zarokan û ...hwd divêt erkê xwe bizanin ku alîkariya Agirî bikin û dengê xwe bigehînin her derê Kurdistanê.

Îlham Çayçî





Arif Vêlzî

# Roja Cîhanî A Zimanê Dayîkê Û Rewşa Zimanê Neteweyên Îranê



Zimanê daykî pênaseya buhayên her neteweyekê ye û herweha faktera herî sereke ye bona parastina yekrêziya netewî û perepêdana mîratên madî û me'newî ên her neteweyekê. Girîngiya zimanê daykî weke stûnekê bona pêşveçûna çandî û kultûrî a her neteweyekê û herweha bona lihevhatina navbera netewan, li ser bingeha gotûbêj û li hevdu têgihîjtinê, teke çandek e ku cîhana îro rojê hewceyî wê ye.

Di roja 21'ê Şubata sala 1952'an de, bi boneya bi fermî nasandina zimanê Bengalî li welatê Pakistanê, meşek li zaningeha Daka ya pêtextê Bengiladişê hat lidarxistin û piştre ji aliyê atrêş û polîsê Pakistanê, ku wî çaxî Daka Beşek ji Rojhilata Pakistanê bû, hat tepeserkirin. Ew bûyera dîrokî ya Dakayê ji aliyekê û, ji aliyê din ve girîngiya zimanê dayikî di cîhana îro de, bûne handerek ku di sala 1990'î de, rêxistina UNSCO'yê, di 30'emîn civîna xwe de, 21'ê Şubatê weke roja cîhanî a zimanê dayîk diyarî bike û piştre, di sala 2008'an de, ev roja han ji aliyê civata giştî a NY ve bi fermî hat naskirin. Lewra hemû salekê di cîhanê de, bi boneya rêzgirtin ji zimanê daykî, di vê rojê de rêûresm tên lidarxistin.

Hilkevta cuxrafî a Kurdistanê û parvebûna wê bi ser çar welatan de, rê xweşker bû ku, siyaseta panturkîzim li Turkiyê, Be's li Sûriyê û Îraqê de û Fars li Îranê de, bi dirêjahiya dîrokê li ser mêhwera helandina netewî, çandî û zimanê Kurdî de bizivire. Raste ku di Herêma Kurdistanê de deshilata xwe birêvebirinê heye û, ji perepêdan û parastina zimanê Kurdî bi tewahiya zaravayên xwe de, rolek berçav lîztiye, lê di beşên din ên Kurdistanê de, hêj xwendin û nivîsandin bi zimanê Kurdî di xwendingehan de qedexe ye û heta haşa ji netewebûna vê tê kirin.

Bo mînak di Îrana bin deshilata Komara Îslamî de, heta roja cîhanî a zimanê daykî, di rojhijmêra fermî ya xwe cih nedaye û bi sedema siyaseta helandina tevalî a netewên Îranê, ku yek ji wan neteweya Kurd e, zimanê Kurdî derfeta geşeya hewce tunebûye.

Di rewşek weha de hewce ye ku, gelê Kurd bi liberçavgirtina girîngiya zimanê daykî û ew gef û tehlûkeyên ku li ser hebûna vî zimanî derxistine holê, roja cîhanî a zimanê daykî bike hander û îstartek ku, hemû partî û aliyên siyasî û civakî hevdeng û havterîb, bona pêşdebirin û geşandina zimanê Kurdî pêngavan hilgirin û bixasmanî handerê ciwan û zarokên Kurdistanê bin ku xwediyê pêşerojê ne, bona baştir nasîn û baştir fêrbûna zimanê Kurdî, weke erkek netewî xebat bikin.

# 10'ê Adarê wekî roja cilûbergên kurdî hat diyarkirin



Li tevahiya sazî û dezgehên hikûmeta herêma Kurdistanê, karmend, xwendekar û mamosta wê cilûbergên kurdî lixwe bikin.

Li gorî nûçeya malpera Rudaw, Berdevka wezareta perwerdeyê ya hikûmeta Herêma Kurdistanê Hacer Dawûd ragehandiye: " 10'ê Adarê wekî roja cilûbergên kurdî hatiye diyarkirin. Di vê rojê de wê li tevayî sazî û dezgehên hikûmetê, karmend, xwendekar û mamosta cilûbergên kurdî li ber xwe bikin."

Hacer Dawûd herweha ragehandiye: "Par 8'ê mehê ji bo lixwekirina cilûbergên kurdî hatibû diyarkirin, lê îsal 10'ê Adarê hatiye diyarkirin. Roj jî nayê guhertin û di vê rojê de wê dewama fermî hebe."

# Gotinên Pêşînyan

A: Çiya Mazî



**-Agir Bi Çiyan Dikeve Ter Û Hişk Tevde Dişewite:**

Wekî bûyerek mezin pêk were û tiştên rast neyê xuyabûn. Kesên mafdar û ne mafdar têkevin rêzekê. Mînak: Dema du girse şer bikin, berê xwe didin girseyê gişî, nabêjin ku di nava girseyê de hinekî bê sûc hene. Dema hevalê mirov an yê di heman fikrê de be û şaşiyekê bike mirov jî jê xisarê dibîne.

**- Agir Û Pîşo Li Cem Hev Nabe:**

Tiştên li hevdû neke li ba hev nabin. Pişo ku mirov ji paçika bi êgir çêdike. Dema agir û paçik li ba hev bin wê bişewite. Dîsa pîşo di wateya barûdê de ye. Ku agir here ba barûdê wê biteqe. Du mirovên ku dijminê hevdû bin û ji bo kuştinê li hev bigerin mirov nikare wan li ba hevdû bihêle.

**- Agirê Gûr Di Qurman De Ye:**

Wekî karê hêja,mirovên bi ezmûn dikarin pêk bînin. Mirovên pîr pir geriyane pir bûyer dîtine,ji ber wê yekê jî bi ezmûn in.Ew kesana tiştan hê xweş bikartînin û çêdikin.Çawa agirê qurman mirov baş germ dike ,kirinên mirovên bi ezmûn jî bandorê li mirovan çêdike.

**- Aqil Bi Pereyan Nayê Firotin:**

Ev tê wateya ku aqil(hiş)tiştekî xwezayî ye û nayê kirîn û firotin. Mirovê çiqas dewlemend be jî dibe ku aqilê wî kêm be. Ne wekî alavekî dikanan be ku mirov here bikire. Heke aqilê mirovan bi xwe çê nebe ji xwe bi pereyan çê nabe.

**- Aqil Di Serya De Ye Ne Di Riya De Ye :**

Wekî nayê wateya ku mirovên pîr bi aqil bin,lewre dibe ku aqilê ciwanan hê pir dişixule. Hin ciwan henin ku bi perwerdehiyê bi hertiştî dihesin û zane ne. Lê hin mirovên pîr jî henin ku aqilê wan wekî yê zarokekî tune ye.

# Belgeyek veşartî ji TRT'ê re hatibû şandin

Di sala 2001'an de, Gerînendetiya Giştî a Ewlehiyê nivîsek ji TRT›yê re şandiye û ji TRT›yê xwestiye ku parlementerên Kurd re nebêjin «parlementer» bibêjin «xebatkarê rêxistina terorê.»

Rojnamevanê Milliyetê Can Dundar, di nivîseke xwe de weha qala vê bûyerê dike: «heyamek berî niha min arşîv tevdida, û ez rastî belgeyeke sala 2001›ê hatim, ku Îdareta Emniyetê ji TRT›yê re nivîsek şandibû. Di belgeya han de, ragehandibûn ku divêt li hemberî kîjan destewaje û peyvan de çi bi kar bînin, û çi bi kar neînin.




## Beşeke lîsteyê wiha bû

| Divê Çi Nebêjin | Divê Çi Bibêjin |
|---|---|
| Biryargeha Rêxistinê | Teror Yuvasi (Hêlîna terorê) |
| Îsyan, serhildan | Çalakiyên terorîst |
| Komutan | Rayedarek |
| Gundên hatine şewitandin | Gundên ku gel terk kirine |
| Parlementerên Kurd | Xebatkarên Rêxistina terorê |
| Dewleta Kurd | Pêkhatina li Bakurê Iraqê |
| Kurd | Hemwelatiyê Tirk |

# ŞARISTANA CIWANRO

Ciwanro yek ji şaristanên herî xweş yê parêzgeha Kirmaşan a Rojhilatê Kurdistanê ye. Bajarê Ciwanroyê nawenda şaristanê ye. Bajêr ji aliyê başûr tevî şaristana Serpêla Zehaw, li rohilat tevî Kirmanşan, li bakûr tevî Pawe û li rojava tevî Kurdistana Îraqê hevsînor e.

Li gorî serhijmêriya sala 1385'an a Rojî nifûsa şaristanê 62.259 kes e. Xweza û seqaya herêmê çiyayî û yek ji herêmên herî xweş ê parêzgeha Kirmaşanê tê hesibîn. Bajarê Ciwanroyê di nava geliyek Kûr û çiyayî hatiye çêkirin. Ev çêkirine bi awayekê ye ku çiyayê Şaho wek dîwarekê li çar kîlomêtriya bajar, bi sîngê xwe yê tejî, bajêr li hembêz girtiye û ew herêm wek bajarekî torîstî tê hesibîn.

Xelkê bajêr hemû Kurd û bi zaravê Soranî dipeyvin. Gelê herêmê hemû Misilman û li ser mesebê Sûnî a Şafi'î ne.Şaristana Ciwanroyê li çar herêm û du bajêrên Tazava û Ciwanroyê pêk tê.Li herêma Ciwanroyê de seba hebûna çiyayên gelek bilin, rûbarên bi heybet hene ku em dikarin bo mînak îşarê bi rûbarên Sipî Berg û Leyle bikin.

Xelkê herêma Ciwanroyê bi giştî cotkar û ajeldar in û gelê herêmê li wan du rêyan debara jiyana xwe peyda dikin.

Kurdên Ciwanroyê gelekî welatparêz û geldost in. Hem li serdemê rejîma Şah û hem rejîma Xumêynî li Îranê Kurdên Ciwanroyê gelek caran li dijî zext û zora Şahê Îranê dest bi xebatê kirin û her seba xebata wan gelek caran herêm hate kavilkirin.



Li refên partiyên Kurdistana Îranê û bi taybetî PDKÎ de gelek ji ciwanên vî bajrî xebat kirine û dikin û niha jî refên şoreşa gelê Kurd li xebata Ciwanroyiyan bêpar nebûye û bi sedan ciwanên wê herêmê li halê xebat jibo rizgariya neteweyî ne.

A:Mecîd Rajanî

Kurdên Ciwanroyê gelekî welatparêz û geldost in. Hem li serdemê rejîma Şah û hem rejîma Xumêynî li Îranê Kurdên Ciwanroyê gelek caran li dijî zext û zora Şahê Îranê dest bi xebatê kirin û her seba xebata wan gelek caran herêm hate kavilkirin.



# AGIRÎ

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: giri2003@gmail.com Tel: (+)9647503640792


## Şaciwana Kurdistanê Diyariyek Pêşkêşî Helebçeyê Kir

Şahciwana Kurdistanê Şênê Ezîz di yekemîn pirojeya xwe ya xêrxwaziyê de li Helebçeyê, trombêlek ji cureya Koster pêşkeşî sentera "Diya" kir ku ew senter taybet e bi perwerdekirina wan zarokên ku hewcedarê alîkariyên taybet in.

Şênê Ezîz bi Ajansa Ppeyamnêrê ragehand ku wan di çarçoveya pirojeya alîkariya bi perperokan ku bi piştgiriya Hikumeta Herêmê û rêkxirawa bihewargihîştinê a neteweyî ya PAO encam didin, di serdana bo Helebçeyê û bi amadebûna berpirsyarên hikumetî û mîdyayan, yekemîn pirojeya xwe encam dan ku ew jî pêşkêşkirina trombêlek ji cureya Kkoster bû bo sentera Diya, ku yek ji wan viyan e ku hecehî bi kosterekê hebûn.

Navbirî herweha ragehand ku ew ê li Duhok û Hewlêrê jî projeyek weha cîbicî bikin.



Şênê Ezîz Şahciwana Kurdistanê

## Di Roja "Valintayn"Ê De Çar Gulle Pêşkêşî Hevala Xwe Kirin




Di roja valantaynê de ku piraniya mêran gulên sor didin destê evînên xwe, lê qaremanê helatinê di Afrîqaya Başûr de çar gulle pêşkêşî evîna xwe kirin

Li gorî raporan ew qehremanê helatinê wate Pîstoryos, evîna xwe ya bi navê rîwa da ber gulleyan û di cih de dawî bi jiyana wê anî.

Ew zanyariyên ku heya nijha hatine bilavkirin, eşkere dikin ku di vê rojê de evîna Pîstoryos xweastiye ku bêdeng here mala wî, û wî bixafilîne, lê wî weha zaniye ku ew kes dize ku têketiye nav malê de. Lewra ew daye ber gulleyan.

Pîstoryoz di warê helatina 110, 200 û 400 metroyan de gellek xelat bi dest xistine.





Taybetmendiyek din ya Agirî, dîroka siyasî ya Agirî ye ku di salên 1927 – 1931'an de, yanî di wî çaxî de ku piştî tepeser kirina serhildana Simkoyê Şikak di Kurdistana Îranê de, bizava Agirî li Kurdistana Turkiyê bi serokatiya Êhsan Nûrî Paşa dest pêkir, navenda wê serhildanê çiyayê serbilind ê Agirî bû.

# Agirî Çima Navek Pîroz E?

Her wekî tê zanîn Agirî navê çiyayekî herî bilind ê Kurdistanê ye. Dibêjin ku di çax û serdemê berê de, di çiyayê Agirî de burkan hebûye û jiber ku peşqel û gurriya Agir li ser bilindahiya vî çiyayî de bilind dibû, navê Agirî li ser vî çiyayî danîne.

Li Tewratê de jî îşare pê hatiye kirin ku li çax û heyamê hezretê Nûh Pêxember de, dema ku bahoz rabibûye, gemiya hezretê Nûh li ser çiyayê Agirî lenger girtî ye.

Taybetmendiyek din ya Agirî, dîroka siyasî ya Agirî ye ku di salên 1927 – 1931'an de, yanî di wî çaxî de ku piştî tepeser kirina serhildana Simkoyê Şikak di Kurdistana Îranê de, bizava Agirî li Kurdistana Turkiyê bi serokatiya Êhsan Nûrî Paşa dest pêkir, navenda wê serhildanê çiyayê serbilind ê Agirî bû. Sedemeke din a bi navûdengbûna Agirî vedigere bo qonaxa xebata çekdarî û berxwedaniya PDK Îranê bi dijî rijîma Îranê, di salên 1980 – 1995'an de, ku Partiya Demokrat navê yek ji hêzên xwedî şiyan ên pêşmergên xwe li Bakurê Rojhilata Kurdistanê de, bi navê Agirî bi nav kir. Ev hêza qehreman ku di pêxema berevanî ji mafê berheq ê gelê xwe de karî bi terzekî bêmînak bi dehan û sedan hemase û şanaziyiyên mezin biafirîne.

